Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal de

Hejmar: 97

15'ê Çiriya Pêşîn a 2008

Buha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## YE'ê, Nigeraniya Xwe Derheq Rewşa Xirab A Mafê Mirovan Li Îranê Diyar Kir

Welatê Fransayê ku niha serokê doreyî ê Yekîtiya Ewropayê ye, serbarê gazîkirina balyozê Îranê li Parîsê, nigeraniya xwe ji xirabbûna mafê mirovan li Îranê diyar kir. Fransayê nigeraniya xwe derheq hebûna ferq û cudahiyên olî û netewî, kiryarên dezgehên dadwerî li dijî çalakên jinan, pêkanîna zext û givaşan bo ser xwendekaran, binçavkirina çalakên karkerî û îdamkirina tawanbarên jêr temenê 18 saliyê, diyar kir.

# CEZAYÊ ÎDAMÊ Dİ 137 WELATÊN CÎHANÊ DE HATE RAKİRİN



Hevdem tevî roja 10'ê Çiriya Pêşîn a 2008'an, Roja Cîhanî ya Xebat li Dijî Îdamê, Rêxistina Neteweyên Yekbûyî daxuyaniyeke çapemeniyê weşand û ragihand ku 137 welatên cîhanê cezayê îdamê rakirine.

Eva di halekê de ye ku hêj 60 welat vê cezayê di qanûnên xwe de diparêzin û dimeşînin.

Efûya Navneteweyî jî di vê derbarê de raporek weşand û eşkere kir ku di sala borî de, piraniya daliqandinên cîhanê di 5 welatan de hatin meşandin ku Komara Îslamî a Îranê û Çîn ji van welatan in. Di sala borî de, 1252 xalên daliqandinê di 24 welatên cîhanê de hatine tomarkirin.

## Xebatkarê Dêrîn Yê PDK Îranê, Qadir Sultanpenah Koça Dawiyê Kir



Mixabin êvariya roja sêşem, 14'ê Çiriya Pêşîn a 2008'an, Kekê **Qadir Sultanpenah**, xebatkarê dêrîn yê PDKÎ bi sedema nexweşiya dil koça dawiyê kir.

Kekê Qadir Sultanpenah kurê Salih, sala 1934'an li gundê Talecer ser bi bajarê Seqizê ji dayîk bû. Wî heta çara paşnavendî xwendiye û li sala 1957'an bûye endamê PDKÎ. Sala 1943'an ji aliyê rejîma Şahenşahî ya Îranê ve hate girtin û bo dema 3 salan di girtîgehê de ma.

Navhatî yek ji endamên çeleng yê PDKÎ li bajarê Seqiz û derdorê bûye û sala 1980'an Fermanderê Hêza Ezîz Yûsifî bûye. Di sala 1981'an de berpirsiyarê Komîte Şaristana Seqizê bûye û heyamekê jî berpirsiyarê Komîte Şaristana PDKÎ a bajarê Dîwandere bûye. Kekê Qadir Sultanpenah demekê hevkarê rojnameya NEKEROZ bûye û sala 1986'an di Komîsyona Siyasî – Nizamî a PDKÎ de erkê partiyê dimeşand. Navhatî sala 1994'an, bo dema 9 mehan berpirsiyarê Melbenda 2 bû û sala 1997'an li Bazyanê Berpirsê Komîteya Bane û Pawe bû. Qadir Sultanpenah Kadroyê derece du ê PDKÎ bû û di van salên dawiyê de jî di Komîsyona Siyasî – Nizamî de karê xwe yê partiyê dimeşand.

Bi hilkevta koça dawiyê ya xebatkarê dêrîn, Kekê Qadir Sultanpenah ve, em behî û sersaxiya xwe pêşkêşî malbata wî û Kadro û Pêşmergeyên PDKÎ û hemû xelkê Kurdistanê dikin.

Riha wî şad be û rêya wî tejî serwerî û rêving be.

# Di Civîneke De, Rêzdar Hesen Şerefî Kar Û Encamên Kongreya 14'hem A PDK Îranê Ji Bo Endamên Partiyê Li Silêmanî Û Herêmên Derdora Wê Şirove Kir

Civîna han roja sêşem, 08.10.2008'an, bi beşdariya **Ehmed Rehîmî**, endamê Komîteya Navendî û hejmarek zaf ji endamên partiyê li bajarê Silêmanî û herêmên derdora wê û herwiha hejmarek ji Kadro û Pêşmergeyên partiyê li wî bajarî hate lidarxistin.



Civîn bi ragirtina deqîqeyek bêdengî bona rêzgirtin ji canê paqij yê şehîdan dest pê kir.

Piştre Cîgirê Sekreterê Giştî yê PDKÎ dest bi axavtinê kir û bal kişande ser du mijarên pêkhate û siyasetên Kongreya 14'hem a partiyê. Birêz Şerefî awayê hilbijartin, ewlekarî û weşandina xebatên Kongreyê di ragihandinên partiyê weke beşek ji taybetmendiyên vê kongrê anîn ziman.

Piştre li ser dirûşma Kongreya Çardehem a partiyê axivî û got: Dirûşma kongreyê (Geşekirin û Gelîtirkirina xebatê), xuyakerê wê yekê bû ku partiyê xwe jê re amade kiribû, yanî di hemû waran de pêşde biçe û bala xelkeke zêdetir ji hemû aliyan ve ber bi aliyê xebatê rabikişîne.

Beşeke din a axavtina rêzdar Hesen Şerefî awayê birêveçûna kongreyê bû. Di beşa siyasî a civînê de, Cîgirê Sekreterê Gitşî yê PDKÎ çend pirsên girîng ku di kongrê de bi hûrî û berfirehî basa wan hatibû kirin, anî rojevê. Herwiha qala naveroka dewlemend a kongreyê kir û beşdariya çeleng a endamê kongrê di bas û nîqaşên siyasî de weke yek ji xalên erênî ên kongreya 14'hem zanî.

Birêz Şerefî di beşeke din a axavtina xwe de bal kişande ser girîngîdan bi hêza ciwan û jinan û beşdarîkirina wan di nav kar û xebatên partiyê û anîna wan du qatan bo nav rêberiya partiyê.

Di dawiya axavtina xwe de, Cîgirê Sekreterê Giştî yê PDKÎ rasipartiyên Kongreya 14'hem ji bo rêberiya hilbijartî ya Kongrê, ji beşdarên civînê re şirove kir.

Di dawiya civînê de, beşdaran rexne, têdîtin û pêşniyarên xwe raberî rêzdar Hesen Şerefî kirin ku ji aliyê wî ve hatin bersivdan.

# Şandeke YNK'ê Serdana Deftera Siyasî A PDK Îranê Kir

Roja înê, 10.10.2008'an, şandek ji Yekîtiya Niştimaniya Kurdistanê bi serokatiya **Sedî Ehmed Pîre**, serdana Deftera Siyasî a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê kir ku ji aliyê şandek ji PDK Îranê bi serokatiya Mistefa Hicrî ve bi germî hate pêşwazîkirin. Di vê hevdîtinê de basek siyasî li ser rewşa Îraq û Kurdistan û pirsa Îran û Opozîsyona Îranê hate kirin. Sedî Ehmed Pîre, carek din kêfxweşiya xwe ji encamên Kongreya 14'hem a PDK Îranê diyar kir û pîrozbahî ji rêzdar Mistefa Hicrî û giştî tekoşerên Partiya Demokrat kir.



Di dawiyê de her du aliyan li ser berfirehbûna pêwendiyên di navbera hevdu de tekez kirin.

# Şandek Ji Nûnerên Çend Partiyên Kurdistanî, Serdana PDK Îranê Kir

Roja 09.10.2008'an, şandek pêkhatî ji birêzan **Mistefa Îbrahîm**, nûnerê Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê(El partî), **Elî Şemdîn**, nûnerê Partiya Demokrata Pêşverû ya Kurd li Sûriyê, **Dr. Kawe Ezîzî**, nûnerê Partiya Azad a Kurd li Sûriyê, **Mehmûd Mihemedbaqî Sabir**, nûnerê Partiya Yekîtiya Demokrata Kurd li Sûriyê(Yekîtî) û **Mezher Zimrût**, nûnerê Partiya Maf û Azadiyan(HAK-PAR), bi armanca pîrozbahîkirina bidawîhatina 14'hemîn Kongreya PDK Îranê serdana Deftera Siyasî a Partiya Demokrat kirin ku ji aliyê şandeke vê partiyê bi serokatiya Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê bi germî hatin pêşwazîkirin.



# Şandek Ji Partiya Sosyalîst A Kurdistanê, Serdana PDK Îranê Kir

Roja yekşem, 05.10.2008'an, şandek ji Partiya Sosyalîst a Kurdistanê, bi serokatiya **Mesûd Tek**, Sekreterê vê partiyê, serdana PDK Îranê kir ku ji aliyê şandek ji Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi serokatiya Mistefa Hicrî, bi germî hate pêşwazîkirin. Di vê hevdîtinê de Mesûd Tek, bi hinceta bi dawîhatina serkevtiyane ya Kongreya 14'hem a PDKÎ, ji aliyê Partiya Sosyalîst a Kurdistanê ve, germtirîn pîrozbahî pêşkêş kir. Piştre li ser zirûfa siyasî a Turkiyê bi giştî û Kurdistana Turkiyê bi taybetî axivî û îşare bi binpêkirina mafê mirovan di wî welatî de kir. Di doma vê civînê de, Mistefa Hicrî sîstema hukûmetî li Îranê û xebata xelkê Îranê û PDK Îranê bona dabînkirina mafên berheq ên netewa Kurd di Kurdistana Îranê de anî berbas.



Di dawiyê de her du aliyan tekez li ser berfirehtirbûna dostayetiya di navbera hevdu de kirin.

**Xwendevanên hêja ên Agirî, Kongreya 14'hem ya PDKÎ di navbera rojên 10-14'ê Îlona 2008'an, hat lidarxistin.**
**Di kongreyê de gellek biryar û helwestên girîng hatin girtin. Kongreya 14'hem 9 peyamên taybet ji bo malbatên Şehîdan, girtiyên siyasî, civatên xelkê Kurdistanê, endam û Kadro û Pêşmergeyên partiyê, Konseya Mafên Mirovan a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, Jinan, Ciwanan, Xwendekaran û Kongreya Neteweyên Îrana Federal şand. Weşana Agirî ji ber girîngbûna wan peyaman, di hejmara 96'an de, çar peyam hatin belavkirin. Di vê hejmarê de jî deqa her 5 hejmarên din tê weşandin**

# Peyam Ji Bo Xwendekarên Azadîxwaz

**Xwendekarên xebatkar!**
**Keç û xortên hişyar ên welat!**

Hûn rêvîngên rêya pîroz a zanist û fêrbûnê, hilgirên çirayê agahî û hişyariyê, wergirên destkevt û pêşketinên nû ên cîhanê û birêveberên pêşeroja welat, xwendin û fêrbûna we di cihek pîroz weke zanîngehê de, erk û gaveke pêşekevtî û xizmet bi pêşeroja welat û xelkê ye. Hînbûna we bi metodên zanistî û rexnegirane di zanîngehê de, çavê we ji bo dîtina rastiyan tûjtir û bîr û hizra we vekirîtir û hevdem erkê we yê neteweyî qurstir dike. Di civakeke bin destê dîktatorî û sîstema kevneperest de, hûn hêviya hatine rojeve tîrêja zanebûn û zaniyariyê ne û divêt agahî û li ser sehbûnê ji bo zanîngeh û kûrahiya civakê veguhêzin.

Hevdem tevî wî erkî, di welatê bin destê dîktatorî û çewisandinê de, hûn nifşek bihest û armancxwaz in ku ji bo bidestveanîna azadî û dadperweriyê xebat û tekoşînê dikin.

Her weke ku dîroka bizava xwendekarî di Îranê de nîşan daye, di demên hestiyar de, hûn di refa herî pêş a serhildan û rabûnê de bûne û di van çend salên dawiyê de jî, we nîşan da ku her wisa biwêr in. Êrîşa hovane a hêzên rejîmê bo cihên xwendin û hînbûna we, xuyakerê tirsa zaf a nezanan ji agahî û hişyariya we ye.

Erxayîn bin ku xebat û rabûna we li dijî dîktatorî, zordarî û stemê, dê her berdewam be û hûn yek ji hilgirên erkê dabînbûna demokrasiyê di Îranê de ne û kongireya 14'hem a PDK Îranê, piştevaniya partiyê ji xebat û tekoşîna we dubare dike.

**Xwendekatên çavnetirs ên Kurd!**

We egîdên biemeg ên welat û neteweya me, serbarê xebata azadîxwazane û dijî nezaniyê, erkê herî girîng yê neteweyî jî li ser stûyê xwe hilgirtiye û birêve dibin.

Hûn bi xwendin û perwerdebûnê û veguhastina zaniyarî û hizran ji bo netweya xwe ya bindest, li dijî nezanhêştina xelkê xwe xebatê dikin. Rejîmên pawanxwaz û tarîperest ên zal bi ser Kurdistanê, herdem hewl dane ku neteweya me di nezanî û neagahiyê de bihêlin û hûn çirayê ronahîker di Kurdistanê de ne ku bi hilkirina bi hezaran ji we, esman, çiya û bajarên Kurdistanê ronahî dibin.

Ji aliyekî din ve, hûn dengê mafxwaz û azadîxwaz yê neteweyek bindest in û xebata we ji bo nasnameya we a Kurdbûnê, berxwedan li hember tarîtiyê û biçokdeanîna bêdengiya bi zor sepandî û xebata mafxwazane û azadîxwazane a we di çepera zanîngehê de, dirêjiya xebata neteweyî – demokratîk a Kurd di Kurdistana Îranê de ye.

Hûn bi xebat û serhildan û berxwedana xwe, perdê li ser derew û dekên desthilata zal hil didin û demargirjî û fêlkariyên desthilata tepeserker, di biyava giştî de eşker dikin û siyasetê dikin rojeva xebata cemawerî û giştî.

Hûn Pêşmergeyên Kurdistanê di çepera azadîxwazî û hizirmendî a zanîngehê de, nîşanê di nav çavên nezanî û dîktatoriyê de digirin. Kongireya 14'hem a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, kongireya pêşdeçûn û gelîtirkirina xebatê, piştevaniyê ji xebat û tekoşîna we dike û pê li ser vê




çendê diçeqîne ku xebata tevalî û azadîxwazane a neteweya me, hewcehiyek zaf bi beşdariya tev tex û qatên civakê û bi taybet nifşa hişyar û agah a xwendekar, keç û xortên têgihîştî û pêgihîştî ên Kurd heye û beşdariya tev çîn û qatan di xebata rewa û mafxwazane a Kurdistanê de, garantîkerê rizgarî, azadî û demokrasiyê ye.

Kongireya pêşdeçûn û gelîtirkirina xebatê, we xwendekarên xebatkar weke Pêşmergeyên Kurdistanê di çepera zanîngeh û qada xebat li dijî rejîma nezanperest de dizane û piştevan û hevrêyê we ye.

Silav li xebat û tekoşîna azadîxwazane û rizgarîxwazane a we
Silav li wêrekê û netirsiya we
Silav li hizra rexnegir û serdemiyane a we
Serkeve azadî û dadperwerî

**Kongreya Çardehem a PDKÎ**
**Îlona 2008**

# Peyam Ji Bo Kongreya Neteweyên Îrana Federal

Rêxistin û partiyên endam di Kongreya Neteweyên Îrana Federal de!

tevî rêz û silavan!

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, weke yek ji endamên Kongreya Neteweyên Îrana Federal, 14'hemîn Kongreya xwe "Kongreya Pêşdeçûn û Gelîtirkirina Xebatê" di roja 10.09.2008'an, lidarxist. 14'hemîn kongreya PDK Îranê di gengeşeyên pêwendîdar bi Îranê û şirovekirina rewşa opozîsyona demokrat de, pêkanîna Kongreya Neteweyên Îrana Federal weke destkevtek mezin û girîng zanî bona hevgirtina neteweyên bindest li Îranê di pêxema gihîştin bi demokrasî di wî welatî de û dabînbûna mafê netewî yên neteweyên Îranê, yekgirtinek ku di pêvajoya xebata azadîxwazane ya Îranê kêmmînak yan bêmînak bûye.

Bê şik gihîştin bi destkevtek han, di pêş de vedigere ser hevderdî û seha wekhev a neteweyên bindest li Îranê li dor yekîtiya saziyek han ne tenê ji bo rejîma Komara Îslamî weke sîstemek nedemokratîk û binpêkerê mafê mirovan û mafê neteweyên Îranî, nexweş e, belku ji bo wan hêzên opozîsyona Îranê ku dijberî tevî dabînbûna mafê neteweyî li Îranê dikin, cihê nigeraniyê ye.

Lewra em bawer in ku divêt saziya han di warên cur bi cur de pitir were çalaktir û bihêztirkirin.

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê di vê derbarê de bi başî agahdarê wezîfeyên xwe heye û amade ye bona çalaktirkirin û nasandina zêdetir a KNÎF ku partiyên endam ên wê di warê hizrî, siyasî û bi kiryar de, neteweyên bindest yên Îranê rêberî dikin, zêdetir kar û çalakiyan bike da ku bikare bandora kongreya han li ser bûyerên Îranê bihêztir bike û bibe xwedî rolek erênî di pêşerojeya Îranê de.

Em destê yek yeke endamên Kongrê diguhişînin û li ser hevkarî û yekgirtina zêdetir di pêvajoya xebat li dijî rejîma Komara Îslamî a Îranê tekezê dikin.

Bihêztir be hevgirtina neteweyên bindest li Îranê bona gihîştin bi demokrasî li Îranê û dabînbûna mafê neteweyî a neteweyên Îranê.

**Kongreya 14'hem a PDK Îranê**
**Îlona 2008**

# Peyam Ji Bo Endam, Kadro Û Pêşmergeyên PDKÎ

Hevalên hêja!
Li gor azîn û usûlên demokratîk ên partiya me, bi xweşî ve kongreyên partiyê di rewşên heta aloz û dijwar de jî hatine lidarxistin, ji bo ku bi wext rewşa giştî a cîhan, herêm, Îran û Kurdistanê û hemû guhartin bihêne nirxandin û em bi kar û çalakiyên derbazbûyî de biçin û rêbaza hêja û jêhatî ji bo domandina xebatê destnîşan bikin.

Kongreya me a vê carê, Kongreya 14'hem, Kongreya Pêşdeçûn û Gelîtirkirina Xebatê di meha Xermanan(Îlona 2008)ê de birêve çû û her wekî dihat pêşdîtinkirin û bernamerêjî jê re hatibû kirin, bi awayekî serûber erkên xwe encam da.

Beşdarên vê Kongreyê silavên rêz û emegdariyê pêşkêşî we dikin û spasiya kar û tekoşîna yek yeke we xebatkarên PDK Îranê dikin ku di heyamê çar salên borî de jî we bêrawestan fidakarî û çalakî meşandine û di pêşdebirina pêvajoya xebata me a berheq de bi bandor bûn. Kongreyê di şirovekirina xwe de hewl û cehd û fidakariya we bi yek ji sedemên serbilindî û domandina pêvajoya berxwedana tevgera Kurd li Kurdistana Îranê bi rêberiya partiya me a xebatkar dana û di vê derheqê de bi rêz û hurmet ve mêzeyî dilsozî û hewla mandînenasane a we kir. Beşdarên Kongreyê bi vê yekê xemgîn bûn ku cihê nûnerên endamên partiyê li hundirê welat yan yên ku bi liv û tevgerên nerazîbûna xwe pişta rejîmê lerizandin, vala û betal bû, eva jî vedigere bo rewşekê ku kongre tê de hate girtin. Em hêvîdar in ku kongreyên pêşerojê li Kurdistana azad û bi amadebûna wan ezîzan bihê lidarxistin.

Hevalên rêzdar!
Bêguman dirûşma Kongreya Çardehem a partiyê yanî "Pêşdeçûn û Gelîtirkirina Xebatê" erkeke gellek qurs û giran dixe ser milê Kadro, Pêşmerge û endamên PDKÎ li her cihekê, ji bo ku ew dirûşme bihê praktîzekirin û armancên xwe bi awayê hewce bişope.

ji bo bicîanîna wê meremê me hewcehî bi dîsplîn û serûberiyeke zêdetir, bizane û qanûnmendiyeke bêtir di kar û pêwendiya navbera organên partiyê de heye, xuya û eşkere ye jî, her çiqas pêvajoya xebata me pêşde biçe û berfirehtir bibe, rejîma Komara Îslamî a Îranê weke rejîmeke dijîgelî hartir û her wekî heta niha jî nîşan daye bandoreke zêdetir di komplo û serkut û çewisandinê de dilîze. Lewra ji bo betalkirina her pîlaneke rejîmê pêwîst e endam, alîgir û Kadro û Pêşmergeyên partiyê bêtir hest bi berpirsiyariyê bikin, wurya û hişyar tevbigere. Ji ber ku sermaya eslî û piştevan û stûna pişta partiya me ne. Ew partiya ku neteweyek bi çavê hêvî û xweziyan lê dinêre û yê bûye çiqila çavê dijminên gelê Kurd. Di heman demê de, hewce ye her kiryar û liv û lebateke xebatkarên demokrat bersivderê wê pirestîj, hitbar û ew rûçikê demokrat be ku naveroka partiya me pê hatiye nasîn û qelafeta wê pê hatiye xemilandin. Di yekemîn gotinê de, divêt em xwe ji bo pêvajoyeke nû ji xebatê ew jî bi kiryar û liv û lebateke demokratîk amade bikin û qonaxeke din ber bi serkevtinê bibrrin. Di vê derbarê de li ser hewl, cehd û xebata mandînenasane a we hesabeke taybet tê kirin.

Careke din em destê hevaltiya we diguhişin, gavên we xurttir, rêya serkevtinê kêmnavbertir, xweştevîbûna we di nav dilê civatên xelkê Kurdistanê de zêdetir û zêdetir be.

**Kongreya Çaredehem a Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Îlona 2008**

# Peyam Ji Bo Ciwanên Kurd Li Kurdistana Îranê

Kongreya PDK Îranê, bi baldan bi vê çendê ku hêza ciwan, di civaka Kurdistanê de ji aliyekî ve xwediyê îro û pêşeroja civakê ye û ji aliyekî din ve, ji bo peydakirina pênasekirin ji xwe û niştimana me re erkdar e, her di destpêka avabûna xwe de, li ser vê bawerê bûye ku vê nifşê, ektîvtir û bihêztir bike. Bo vê meremê jî roleke sereke di avakirina Yekîtiya Ciwanên Demokrat ên Kurdistana Îranê de lîst û harîkarê wê çendê bûye ku ciwanên Kurd serbarê hindê ku di pêxema bidestxistina mafên neteweyî yên xwe dixebite, newestane ji bo dabînbûna mafên sivîl ên xwe hewlê dide û di encam de li dengdan, birêveberî û desthilat û avakirina welat û darêtina yasa û tev aliyên din pişikdar be û asûde bijî û seh bi hebûna xwe weke hevwelatiyekî bike û rola xwe weke hevwelatî bilîze.

Di serdemê îro de ku mirovahî bi destkevtên berçav ên mirovî û zanistî gihîştiye û teknolojî bilez diçe pêş û masmedyayê teqîneke berfireh bi xwe ve girtiye û pirsa cîhanîbûnê yê bûye qisa ser zimanan, erkê ciwanê Kurd li caran girantir e û hewce ye ku di vê qonaxê de xwe ji bo vê çendê berhev bikin ku li karwanê pêşketinê bi cî nemînin.

Niha di Îranê û Kurdistanê de, rojnamevan, rewşenbîr û çalakên mafê mirovan, ji aliyê rejîma dîktator ya Komara Îslamî ve tên girtin, işkence û darvekirin û herwiha canê xwe ji dest didin.

Ciwanên Kurd, cuda ji vê çendê ku mekanîzmeke jêhatî bo berengarîkirin tevî rejîmê di Kurdistanê de peyda kirine, li ser astê giştî yê Îranê jî, bi kiryar selimandine ku weke hêzek ektîv û jêhatî, rêber û rolgerên bizavên cur bi cur yên din li dijî dîktatoriyê ne. Di berhevdanekê de derheq ciwanên Kurd û rola wan di civakê de û bandora wan derheq raya giştî, ji me re rohn û eşkere dibe ku ew afirînên awayên herî nû ên xebatê di qada siyasî ya Kurdistana Îranê de ne.

Girevgirtinên li pey hev, hatina ser şeqaman, bizavê xwendekarî û xebitîna ciwanên Kurd di pêxema cihgîrbûna demokrasiyê li Îranê û gihîştina Kurdan bi mafê xwe, ji van nimûnanen in ku îro em şahidê vê çendê ne ku ji aliyê ciwanan ve tên rêxistin û rêbaz û awayên wan jê re tê diyarîkirin û her di vê derheqê de rola ciwanan bo pêşwazîkirin ji xwestekên Partiya Demokrat ji bo organîzekirina girevgirtinan û beşdarîkirina van di hilkevtên cur bi cur ên neteweyî û siyasî de li berçav e û Partiya Demokrat rûmet û şanaziyê bi hebûna nifşeke wisa di civaka Kurdistanê de dike.

Kongreya Çardehem a PDK Îranê, çavnihêriya vê çendê ji ciwanên Kurdistanê heye ku di vê xebata giştî û gelî a Kurdistana Îranê de, roleke ektîvtir û berçavtir bigirin stûyê xwe û vê xebatê di roj, heftî, heyv û salên pêşerojê de, bihêztir û ektîvtir bimeşînin.

Serkevtin ji bo Kurd û azadîxwazan
Neman ji bo Komara Îslamî a Îranê

**Kongreya Çardehem a PDK Îranê**
**Îlona 2008**

# Peyam Ji Bo Jinên Kurdistanê

Kongireya 14'hemîn a PDK Îranê, silavên xwe ên şoreşvanî pêşkeşî jinên Kurdistana Îranê dike û hêviyê dixwaze ku jinên Kurdistana Îranê bikarin di xebata xwe de bona dabînkirina maf û azadiyên xwe ser bikevin.

PDK Îranê bi çavê pirr ji hêvî ve mêzeyî xebat û berxwedana jinên Kurdistana Îranê bona ji holê rakirina newekhevî û bêdadiyên ku ji aliyê rejîma Komara Îslamî di Îranê de li dijî wan pêk hatiye, dike.

Xebat û berxwedanek ku niha bi awayekî haşanekirî bûye çeperek mezin ji bo bizav û xebata netewî - demokratîk a xelkê Kurdistana Îranê.

Em pirr keyfxweş û serbilind in ku dibînin bizava jinan di Kurdistanê de bi awayekî berçav xurt bûye û xwe organîze kiriye. Xebatkarên jinan jî mil bi milê tekoşerên bizavên siyasî, çandî û civakî yên din li Kurdistanê, di çepera herî pêş a xebatê de ne.

PDK Îranê xebata jinên Kurdistana Îranê di pêxema maf û azadiyên wan de, berheq dizane û dê bi hemû hêza xwe piştevaniya ji wan bike.

PDK Îranê ji rêya tirîbûna organa xwe a herî bilind ve, car din hevpeywendiya Partiya Demokrat tevî jinên Kurdistanê, radigihîne û sozê dide we ku dê hemû cure hevkariyekê bona dabînbûna mafên jinan bike. Her di wê demê de em weke PDK Îranê daxwazê dikin ku hûn jî bi beşdariya xwe a berfireh di xebata Kurdistanê de, bizava netewa me xurttir û bihêztir bikin û rolên bi bandortir bigirin destên xwe.

**Kongreya çardehem a PDK Îranê**
**Îlona 2008**

RONÎ

Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên "Agirî" re



Ebdullah Hicab

# Ehmedînijad; Etom, Antî Semîtîsm Û Azadîkujî

Dijkiryara Rojava li hember helwêsta antî semîtîstî ya Mehmûd Ehmedînijad ku di civîna meha Xermanan(Îlon)ê ya Civata Giştî ya Rêxistina Netewên Yekgirtî de anî ziman, tûj, bi lez û di cihê xwe de bû. Ehmedînijad di wê civînê de bi hêceta dijberiya bi siyaseta Îsraîlê re, helwêsta xwe ya dijî xelkê Cihû dubare eşkere kir û hemû Cihûyên cîhanê weke "sionîstên mirovkuj" dane nasandin ku bi awayekî berfireh aborî û siyaseta Rojava kontrol dikin. Serbarê vê yekê ku ew helwêst di çarçoveya giştî ya siyaseta Komara Îslamî de bû, lê gotinên Ehmedînijad weke tehlûkeyek nû ya rêjîma Îranê bo Îsraîlê hate nirxandin û di hember de helwêstek tûj hate girtin.

Ehmedînijad di wê civînê de, her weha di derbarê dosya Etomî ya welatê xwe de jî axivî û di wê mijarê de jî helwêstek nîşan da ku bi dilê Rojava nebû. Li ser wê mijarê jî reaksiyonên cîhanê tund û li cihê xwe bûn. Dijkiryara koma 5 + 1 ku dubare ji Îranê daxwaz kir her 3 biryarnameyên pêşîn ên komê birêve bibe, di wê çarçoveyê de hate temaşekirin.

Lê serokkomarê Îranê, di heman civînê de li ser ramana xwe ya derheqa azadî û mirovahiyê jî axivî. Wî bi heman şêweya ku li dijî rola Cihûyan di siyaseta Rojava de axivî û mafê xwe yê bidestxistina teknolojiya navikî parast, li ser îdealên mirovahiyê û mafê mirovan jî helwêsta xwe ya antî demokratîk nîşan da û diyar kir ew û rêjîma wî tu manayê nadin wan mijaran. Li ser wan babetan, Rojava û dewleta Îsraîl reaksiyonek wesan li dijî Ehmedînijad û gotinên wî nîşan nedan. Weke çawa tu bêjî ew mijar bi hev re girêdayî nebin û serekaniya hemûyan îdeolojiya fermî ya Komara Îslamî nebe!

Siyaseta antî semîtîstî, an dijberiya bi gelê Cihû re bi salan e ji aliyê rêjîma Komara Îslamî ve tê meşandin, û propagandeya dijî Cihûyan û dewleta Îsraîl di medya û siyaseta fermî ya rêjîmê de deng vedide, lê tu gav ji aliyê gelên Îranê ve nehatiye erêkirin. Bi gotinek hê eşkere, ew dijberiyên ku li dirêjahiya dîrokê, bi şêweyên cuda li deverên cihê yê cîhanê bi xelkê Cihû re hatiye kirin, heta ku Komara Îslamî li Îranê nehatibû ser kar, di nava gelên Îranê de tune bû û çi gav gotin an kirinek li dijî berjewendî an mafê xelkê Cihû li Îranê nehate encamdan û di Îrana bin desthilata Komara Îslamî de jî, digel ku nirxa wê jî hatibe dan, dîsan hemû kes û aliyên parêzerê mafê mirovan li hember wê helwêsta dijî mirovahiyê de dijkiryar nîşan dane û ew helwêsta Komara Îslamî ji destpêkê re şermezar kirine.

Siyaseta Mehmûd Ehmedînijad û hevbîrên wî ne bi tenê di warê projeya Etomî ya Îranê û dijberiya Cihûyan re li dij mirovahî û aştiya cîhanî ye, lê her wesan di warê mafê mirov û aştiya cîhanî de jî li dijî hemû pîvan û qirarên mirovahiyê ye. Ew hilgirê îdeolojiyekê ye ku li cihê aştî û hevkariyê, kîn û dijberiyê li cîhanê belav dike û serhostayê wê siyasetê jî ne ku Ehmedînijad, lê di destpêkê de mamostê wî ê dil pirr ji kîn, Ayetullah Xumeynî bû ku ji salên deheya 60 a sedsala 20'an ve bingeha îdeolojiya tundrev ya Komara Îslamî danî.

Ehmedînijad bi tenê rêvîngek bê desthilat yê rêya wê mektebê ye ku ji sala 1979 û pêve hemû Rojhilata Navîn kiriye meydana şer û şofar û şevreşiyê. Di destpêkê de gelê Kurd li Rojhilata Kurdistanê bû qurbaniyê wê bîroka dijmirovahiyê. Kurd weke dijber û dijminê îdeolojiya Komara Îslamî hatin nasandin û Kurdistan bû yekem armanca şerê rêjîmê. Ji wê demê û heya niha, her carê bi awayekê û her demê bi navekê girtin û kuştina Kurdan û binpêkirina mafê mirovan li Kurdistanê berdewam bûye.

Her di wan çar salên ku Mehmûd Ehmedînijad bûye serokkomar heya niha, li bajarên cuda yên Rojhilata Kurdistanê bi dehan kes hatine kuştin, bi sedan kes hatine girtin û îşkencekirin û hemû Kurdistan dubare hatiye mîlîtarîzekirin. Pêlên îdamê di wan mehên dawî de zêde bûye û komek xebatkarên mafê mirovan û rojnamevanên Kurd di girtîgehan de bi îdamê re rûbirû ne.

"Amnesty International" her di wê dema dawî de, bi 3 raporên cuda rewşa mafê mirovan di herêmên Belûçistan, Ahwaz û Kurdisatanê di dema serokkomariya Mehmûd Ehmedînijad de eşkere kir. Her yek ji wan raporan bi berfirehî binpêkirinên mafên mirovan di wan herêman de nîşan dide. Her di wê demê de rola Komara Îslamî di alozkirina rewşa Îraq û Efxanistanê de diyar û berçav e. Gelo bi wan hemû dosyeyên cinayet û mirovkujiyê re, ma her bi tenê siloganên Ehmedînijad li dijî Îsraîl û projeya Etomî ya Îranê weke metirsiyê li dij mirovahiyê têne temaşekirin?

Di Îrana Ehmedînijad de her roj mafê mirovan û azadî têne binpêkirin. Kontrola dewletê li ser hemû warên jiyana xelkê zêde dibe, tak û kom weke alav û emrazên di destê sîstemê de tên temaşekirin û her carê grûpek dikeve ber kîn û xezeba desthilatdaran. Di destpêkê de Kurd, paşan hêzên çep û demokrat û cudabîr, li pey wan re kêmayetiyên olî yen weke Behaiyan, dû wan re takekesên karbidest ên rêjîmê ku desthilata Weliyê Feqîh red dikin û niha jî rojnamewan û xebatkarên mafê mirovan. Her yek ji wan tak û grûpan bi awayekê û carna hemû bi hev re ketine ber darê destê rêjîma Komara Îslamî.

Dema Nazîstan li Almaniya û Faşîstan li Austriya (Otrîş) di şeva 9 li ser 10'ê heyva Novembera sala 1938'an de "Kristallnacht" an şeva krîstal pêk anîn, pêvajoyekê dest pê kir ku di encama wê de bi miliyonan Cihû hatin qirrkirin û cîhan kete nava aloziyeke bê hempa ku dehan salan li pey wan bûyeran re jî hêj karîgeriya wê berçav e. Mesajên Ehmedînijad dide û siyaseta ku di wan sê dehsalên dawî de Komara Îslamî meşandî û dimeşîne, pirr aliyan ve dişibhe wê zêhniyeta ku şeva Krîstal xuliqand. Dijberiya bi pêvajoya aştiyê li Filistînê, pirçekkirina grûpên tundajo yên terorîst li Efxanistanê bigre heya Lubnan û welatên Ewropayî, vejiyandina binajoyî û kevneperestiyê, zext û givaş li ser gelê Kurd û gelên din yên Îranê, zêhniyeta alozîxulqên û çandina toyê tund û tûjî, alozî û dijberiyê hemû berhemên Komara Îslamî ne.

Di wê rewşê de eger Rojava bi tenê li ser dosya Etomî raweste û car û bar gefên Ehmedînijad li dijî Îsraîlê rexne bike, dê bikeve nava şaşitiyekê ku di dawiyê de qerebûkirina wê zehmet e. Pirsa ku tê pêş ew e gelo madem nehatiye ku Cîhan hemû warên siyaseta Komara Îslamî bi hev re temaşe bike û li hember wê rêjîmê de helwêstek hemûalî û ron bigre ber?

## Peyama Nesrîn Qasimlo Ji Bo 14'hemîn Kongreya PDKÎ

Silav li Kongreya Çardehem a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê!

Hevalên delal, ji wê demê şûnde ku Kongreya Sêyem a partiyê hat lidarxistin, yanî 35 salan berî niha, Partiya Demokrat di navbera du heta çar salan bi awayê serûber kongreyên xwe pêk tîne, nemir Dr. Ebdulrehman Qasimlo ji bervara kongreya 3 heta 19 salan berî niha di pileya yekem a partiyê de bûye û piştî şehîdkirina wî û Dr. Seîd, serbarê hemû arîşeyan, partiyê karî ye bi başî li ser pêyê xwe raweste. Ew rastiye hêza rêxistinî û demokratîkbûna partiyê diselimîne.

Derfetê bidin min, ez vê yekê bibîr bînim ku dîroka partiyê, dîrokeke tejî liv û tevger e, piştî vê çendê ku Şahê Îranê û Arteşa wê rejîmê karîn derbeke qurs û giran li partiyê bixin, bi vê hêviyê ku partiyê ji nav bibin, çend kesên welatparêz biryar girtin ku partiyê zindî rabigirin. Wan hin dem û salên dijwar bihurandin û pirraniya wan di vê rêyê de şehîd bûn.

Xebat ji bo azadî û dabînkirina mafê neteweyî, xebateke dijwar e. PDKÎ ji bo azadiya Kurdistanê xwîneke zaf daye. Heta niha jî dawî bi vê xebatê nehatiye.

Hevalên xweştevî!

Cîhana îro bi lezgînî ber bi pêşve diçe, lê hikûmeta Axundî(Mela) bernameyeke cuda ji pêşkevtina neteweyî heye. Hêviya neteweya Kurd bi we ye û çavnihêriya wan ewa ye ku hûn xebata xwe heta serkevtinê bidomînin.

Sedema vê çendê ku hûn îro di vê kongreyê de beşdar in, divê ewa be ku hûn dengê welatiyên xwe dibihîzin û amade ne bersivderê çavnihêriyên wan bibin.

Hêviya min ji we re eva ye ku tu demekê guleyên dijmin negihîjin we û heta hûn zindî û sax in, serkevtinê bibînin.

**Nesrîn Qasimlo**
**Parîs-18'ê Hezîrana 2008**

## Peyama Serokatiya Partita Maf û Azadiyan-HAK-PAR Ji Bo Kongreya 14'hem A PDKÎ

Bayê ku ev 20 sal e dinyayê ber bi guhartinê ve diherikîne, bûye baxoz û hemê statukoyên Rojhilata Navîn dihejîne. Ew statukoyên ku bi sedan sal e gelê me di bin zilma wan de dinale, terrk lêketiye û li ber hilweşandinê ne. Gelê me yê li Başûrê Kurdistanê êdî di rewşek azad de ye û ji nû ve pêşeroja xwe ava dike. Tekoşîna azadî û rizgariyê, li Bakûr û Rojavayê Kurdistanê jî bênavber dom dike. Tekoşîna gelê me yê Kurdistanê ku bi dehan sal e li dijî rejîma hov û dagirker didome, ji bo hemû perçeyên din bûye labaratuwareke bêhempa û berhemdar. Ew agirê azadî û serxwebûnê ku li meydana Çarçirayê hatibû vêxistin, hê jî şewqa xwe li çiyayên Kurdistanê belav dike.

Îro jî tekoşîna azadiya Gelê Kurd di rê û şopa ku ji aliyê şehîdên nemir Qazî Mihemed, Qasimlo, Şerefkendî û şehîdên din yên Kurdistanê ve hatiye vekirin, tê meşandin û yadên wan e ku hêz dide me û riya me ronî dike. Em li ser wê baweriyê ne ku dê tekoşîna azadiyê ya li Rojhilatê welatê me, bi rêberî û pêşengiya Partiya Demokrata Kurdistana Îranê bi serkeve.

Em bi navê endam û birêveberên Partiya Maf û Azadiyan bi rêz û hurmet silav li beşdarên Komcivîna Partiya Demokrata Kurdistana Îranê dikin û ji Komcivînê re serkevtin hêvî dikim.

Em hêvîdar in ku dê Komcivîna 14'an ya Partiya Demokrata Kurdistana Îran di nav yekîtî û yekdengiyê de bi serkevtî derbas bibe û bi hêzeke xurt û rêkeftî di riya şehîdên nemir de ber bi azadiyê ve bimeşe. Ligel rêz û silavên biratî.

Bijî yekîtî û hevkariya Gelê Kurd

**Serokatiya Partita Maf û Azadiyan-HAK-PAR**
**Amed-Bakûrê Kurdistanê**

## Şiroveya Peyvên Siyasî



**Berhevkar: Omîd Esxeran**
**omid_anbi@yahoo.com**

# Opozîsyon

Têgiha han ji zimanê firansî hatiye wergirtin û tê wateya dijberîkirin yan jî berxwedanê. Peyva han di wateya xwe ya berfirehtir de, pêkhatî ye ji hewl û xebata sendîka û partiyan yan jî deste û kesan ji bo gihîştin bi armancekê ku li dijî xwestek û armanca desthilatdarên siyasî, aborî û civakî bi mifahwergirtin ji metodên parlemanî yan jî her şêwazeke din e.

Di wateya xwe ya biçûktir de, pêkhatî ji girûpekê ye ku di hikûmeta parlemanî de li gor yasayên welat îfade pê hatiye kirin û di Parlemanê de girûpekê pêk tînin ku ser bi dewletê nîn e û piştevaniyê jî jê nake, lê serbarê vê çendê jî bawerî bi destûra welat heye.

Opozîsyona parlemanî beşdariyê di civînên parlemanê de dike û li gor yasayên diyarîkirî, çavdêriya rasterast bi ser kar û barên welat de dike û raya giştî jî ji vê çendê haydar dike.

Rola herî girîng a opozîsyonê eva ye ku derfet û kesya hilbijartinek din ji bo xelkê pêk bîne hetanî ku hilbijartinek baştir û erênîtir were birêvebirin.

Opozîsyona bi vî awayî di hin welatên lîberal ên weke Îngilîstan, Fransa û Swêdê de, weke tewawkerê sîstema parlemanî tê hesibandin ku bi awayekê normal du partiyên sereke hene ku bi nobe rola desthilatdar û opozîsyonê listû digirin. Di welatên yek partî de opozîsyona fermî û yasayî ne di holê de ye û her cure dijberîkirinek tevî dewlet û partiya desthilatdar, weke dijberîkirin tevî destûr û ewlehiya giştî tê hesibandin.

Yekem opozîsyona siyasî di sedsala 18'an de li Birîtaniyayê bi serhildana her du partiyên Wîg û Torî hate avakirin. Herçend ku du partiyên han di warê pêgeh û çavkaniya civakî ve tevî hev hevhêl nebûn û di gellek waran de jî dişibiyan hev, lê hertim şerê piranî û kêmaniyê û cîguhartina partiya desthilatdar û opozîsyonê, di nava wan de berdewam bû û sedema vê çendê jî zêdetir dijheviya siyasî, giştî û taybetî bû.

Di sîstemek bi giştî parlemanî de, opozîsyon wan erkan cîbicî dike ku di teoriya kilasîk(jihev cudakirina desthilatan) de ji bo Parlemanê hatiye diyarîkirin. Çunku ji wê demê ve ku sîstema parlemanî serî hildaye, hertim serokê dewletê û rêberiya piraniya Parlemanê hev digirin û hevgirtina han jî dikare rola Parlemanê weke çavdêrê cîbicîkirina yasa û desthilata yasadananê di çarçoveya destûrê de bixe tirsê. Lewra opozîsyon dikare weke alaveke girîng û bi bibandor, çavdêriyê bi ser desthilata cîbicîkirina welat de bike.

**Çavkanî: (Ferhengî Ramiyarî Nîga) Azad Weledbegî**
**(Danêşnamêyê Siyasî) "Politicial Dictionary"**
**Daryûş Aşorî**

# Jinên Kurdistanê

**Karin Loykfild**



Jinên deverên Kurdakincî, (Îran, Îraq û Turkiye) nêzîk sedeyekê ye ketine jêr zext û givaşên ku di encama şer, koçberbûn û deb û edetên paremayî û kevin ên civaka mêrserdest de pêk hatine. Serbarê vê çendê ku pêwendî û deb û edetên civakî ên li jêr bandora çanda kevn û paşvemayî a ola Îslamê jî zext û givaşên han du qat kiriye. Helbet divêt ji bîr nekin ku hinek caran di gellek hoz û eşîran de, jin piştî mirina hevjînê xwe, berpirsiyariya birêvebirina eşîrê digire stûyê xwe. Jinên bitemen di nava malbatên xwe de xwedî pêgehek taybet in. Lê jinên devera han (Kurdistana Îranê) heya pêş avabûna Komara Kurdistanê, bi giştî nexwendewar bûn û ji perwerdehiya xwendinê hatibûne bêbeşkirin. Tenê malbatên dewlemend û serok eşîran dikarîn zarokên xwe bona xwendinê bişînin navendên perwerdehiyê. Lê di malbatên han de jî keçan mafê xwendinê tune bûn. Çimku xelkên wê demê li ser vê baweriyê bûn ku erk û wezîfeyên keçan, maldarî, çêkirina mafûran, xwedîkirina zarokan û çêkirina alavên destî ên kevin e û divêt xwe hînê karên han bikin. Ji dayîkbûna yekemîn zarok û cinsiyeta wê, rolek mezin û girîng di jiyana hevbeş a keçên ciwan yên wê demê de dilîst. Çimku ji dayîkbûna zarokên kur, ji wan re gellek girîng bû. Tevî derbazbûna çendîn salan û piştî pêkhatina guhertinan di zirûfa siyasî û civakî a welatên Turkiye, Îran û Îraqê de, rewşa jiyana jinên derverên Kurdakincî jî tevî guhartinan berbirû bû. Di deverên kurdakincî ên Îran û Îraqê de, navendên perwerdehiyê ên dewletî bona xwendinê hatin avakirin û di malbatên dewlemend de keçan jî weke xortan karîn herin navendên xwendinê û dersê bixwînin.

Di Kurdistana Bakûr de seba hebûna çiyayên bilind û ketina gundan di navbera van çiyayan de û dûrbûna wan li bajaran û hatin û çûn nekirina xelkê gundên han bo bajaran û herwiha hebûna malbatên mezin ên mêrserdest di nava xelkê de, rewşek taybetî ji bo jinan pêk anî ku heya îro jî didome. Di vê beşa Kurdistanê de zewicîna keçên kêmtemen tevî mêrên bitemen û kal, tiştek asayî û normal e. Di nava malbatên han de tenê bavê malbatê ye ku biryarê dide kê dewlemendtir e û bona zewicîn tevî keça wî baştir e. Di rastî de keç di nava malbatên han de bi awayekî fermî tên firotin û her kesek pereyek zêdetir bide, keç ji bo wî ye. Herwiha li gor biryarên Ola Îslamê biryara ji hev veqetiyanê (berdan) di deverên han de di çarçoveya desthilata mêr de ye û jin heta nikare nerazîbûna xwe jî di vê derbarê de diyar bike. Erk û wezîfeya malxê malê ye ku debara jiyana jinê dabîn bike, lê ger vê karê jî neke, bi vê egerê ku jin bi malbata mêrê xwe re dijît, neçar e ku bêdeng be. Ger keç tevî dab û edetên parvemayî yên malbatê dijberiyê bike, tê kuştin. Rastiyên han di nivîsar û romanên **Yaşar Kemal**, nivîskarê bi şiyan û mezin yê Kurd de dikeve berçav. Ji aliyekî din ve di salên borî de li deverên cur bi cur ên Kurdakincî, hebûna ferq û cudahiyan bûye sebeb ku gellek jinên şoreşvan tevî deb û edetên parevmayî dijberiyê bikin. Bo mînak li Başûrê Kurdistana Turkiyê, gellek jin di bin navê parastina namûsê de hatine kuştin. Hejmarek zaf ji saziyên jinan bona pêşîgirtin ji cinayetên han ên nemirovî û hovane gellek hewil dane, lê mixabin bandorek wisa tune bûye. Heta gellek ji jinên gundên Kurdistana Turkiyê û Îraqê tu caran derfeta derketin ji gund û nasiyarbûn tevî jiyana jinên bajêran tune bûne û qet hînî zimanek din xincî zimanê Kurdî jî nebûne. Di rastî de parêzere zimanê Kurdî di pileya yekem de jinên Kurd in. Jinên gundakincî ên Kurdistana Turkiyê ji gişt alav û amûrên destpêkî ên jiyana mirovî weke doxtor û dermanan û... bêpar in. Çimku bona seredankirina nêzîktirîn nexweşxanê, divêt çar rojan bi peyatî bimeşin. Jinên Kurd nikarin ji gundê xwe ve bo gundek din hatin û çûnê bikin, ger mêrên wan bi wan re nebin. Di dehika borî de li halekê ku hêzên Arteşa Turkiyê netewa Kurd ji gundên wan derxistiye û malên wan tevî axê kirine yek û gundên wan kavil kirine û malbat ji hev veqetandine, li halekê ku hêzên Arteşa Îraqê jin û mêr ji hev cuda kirin û mêr xistibûn nava zîndanan, yan mêrên Kurd ên Pêşmerge ku di xebat li dijî Arteşê hatibûn şehîdkirin yan neçar mabûn derkevin derveyî welat, eva tenê jin bûn ku bargiraniya gişt zext û givaşan, êş û azaran bi dil û can girtibûn stûyê xwe. Kavilkirin û şewitandina pitir ji 3 hezar gundên Kurdistana Turkiyê bi destê Arteşa Faşîst a vî welatî zext û givaşek zaf xistibû ser milê jinên Kurd. Şerên berdewan ên Îraqê derbeyên rasterast xiste ser jiyana jinên êş û azardîtî ên Kurd. Îro rojê jî zilm û zordariyên han hêj dom dike. Qetilkirin û kuştina Kurdên Îranê ji aliyê rejîma Komara Îslamî a Îranê ve di doma çendîn salan de, jinên Kurd di Kurdistana Îranê de rastî zext û givaên zaf kiriye ku heya îro rojî jî zilm û zordariyên netewî û civakî li Îranê dom dike. Jinên Kurd bûne goriyê şer û koçberî û zilm û zordariyên çend alî ku di heyama salên derbazbûyî de ji aliyê rejîmên dîktator ên herêmê ve bi ser wan de hatine sepandin. Ji aliyek din ve, sîstema bavserdestî a zal bi ser civaka Kurdistanê û dab û edetên kevin û pareyamî ên hakim bi ser malbatê û mana hoz û eşîran jî bûne sebeb ku jinên Kurd zêdetir bikevin bin zext û givaşan.



## Cezaya Zîndana Hana Ebdî Ji 5 Sal Bo Yek Sal Û Nîv Hate Kêmkirin



Li gor malpera "we-Change"ê(guhertin ji bo wekheviyê) Mihemed şerîf, Parêzerê Hana Ebdî ragihand: Dadgeha pêdeçûnê cezayê zîndana Hana Ebdî ji 5 salan bo yek sal û nîvan kêm kir. Mihemed şerîf got ku Hana Ebdî û Ronak Sefazade, nêzîkê 8 rojan e ku tevlî gireva birçîbûna zîndaniyên siyasî û sivîl yên Kurd bûne û bi vê egerê hevdîtin bi wan re hatiye qedexekirin. Mihemed Şerîf ku parêzerê Ronak Sefarzade ye jî, ragihand ku yekemîn civîna dadgehîkirina wê hêj pêk nehatiye.

## Gundên Devera Qutûra Bajarê Xoyê, Ji Navendên Dermanî Û Dibistanan Bêpar In



Gundên Almalî, Hindewanî û Gûrd ên ser bi devera Qutûrê, tu dibistan û navendên xwendinê nînin, lewra zarokên gundên han ji xwendinê bêpar bûne. Di gundê Almalî 180 malbat, li Hindewanê 200 malbat û li gundê Gûrdê 300 malbat dijîn.

## Hêzên Rejîmê Milk Û Malê Xelkê Gundên Sersînor Ên Selmasê Didizin

Hêzên Sipaha Pasdaran ên rejîmê, heyamê du mehan e ku bi hêceta hebûna çek û guleyan diçine nava malên xelkê gundên sersînor ên devera Selmasê û lêgerînê di nava malê wan de dikin. Hêzên Sipaha Pasdaran bi vê hêcetê dest bi ser alav û amûrên taybetî ên xelkê digirin û heta zêr û perê xelkê jî didizin.

Hêzên rejîmê gotine ku dê pere û zêrên xelkê ji wan re vegerînin, lê heya niha pere û zêre çendîn kesan negihîştine destê wan. Herçend ku xelkê van gundane li dijî kiryarên han doz vekirine û şikayet kirine, lê rejîmê tu bersivek nedaye wan.

## Çalaka Mafê Mirovan A Kurd Hate Binçavkirin



Komeleya Çalakên Mafê Mirovan li Îranê da zanîn ku Nigîn Şêxolîslamî, çalaka mafê mirovan, roja yekşem, 05.10.2008'an, ji aliyê hêzên ewlekarî ên rejîma Komara Îslamî li Tehranê hate girtin. Navhatî berê berpirsa Civata Çandî-Civakî a Jinên Azermêhr a Kurdistanê bû û karê rojnamegeriyê jî kiriye. Nigîn Şêxolîslamî ji girtîgeha Êvînê re şandine.

## 5 Kasibkar Li Devera Selmasê Birîndar Bûn



Hêzên ewlekarî ên Komara Îslamî a Îranê, roja 06.10.2008'an, li nêzîk gundê Bûzoka Selmasê, çendîn kasibkar dane ber êrîşa guleyan û di encam de 5 kes birîndar bûn ku navê wan bi awayê jêrîn e:

1. Nesrula Osmanî, 14 salî, xelkê gundê Aşnakê
2. Mêhdî Osmanî, 17 salî, xelkê gundê Aşnakê
3. Wehbî Hesenzade, 18 salî, xelkê gundê Aşnakê
4. Nasir Esedzade, 18 salî, xelkê gundê Aşnakê
5. Feramerz Mamedî, 35 salî, xelkê gundê Bûzikê.

Rojeva Civakê

## Di Heyamê Salekê De 286 Kes Li Îranê Hatine Daliqandin

**Agirî- Beşa Civakî**

Bi hinceta 10'ê Çiriya Pêşîn, Roja Cîhanî A Xebat Li Dijî Îdamê, çend saziyên parastina mafê mirovan, raporek li ser rewşa daliqandinê li Îranê belav kirin.

Di vê raporê de lîsteya navê wan kesên ku di meha Çiriya Pêşîn ya sala 2007'an, heya Îlona sala 2008'an, li Îranê hatine dardarkirin, hatiye nivîsandin.



Li gor rapora han biryara îdamkirina 286 kesan di heyamê salekê de li Îranê birêve çûye ku ev hejmare li dor sala 2006 – 2007'an, bi qasî 21 kesan zêdetir bûye.

Herwiha 45 kes ji wan di cihên giştî de û li hember çavên xelkê hatine îdamkirin ku di nava wan de jî 14 kes girtiyên siyasî û 4 kes jî jin bûne.

Di nava 177 kesên daliqandî de ku navên wan di raporê de hatiye, temenê 3 kesan jêrdeyî 18 saliyê bûye û temenê 64 kesan jî heya 30 saliyê bûye. Herwiha 13 kes ji wan di dema encamdana tawanê de li temenê jêrdeyî 18 saliyê bûne.

Hêjayê gotinê ye ku di heyamê amadekirna vê raporê de, biryara îdamkirinê ji bo 237 kesên din hatiye dan ku 6 kes ji wan bi kevirbaranê hatine mehkûmkirin. Herwiha di nava vê hejmarê de temenê 26 kesan jêrdeyî 18 saliyê ye û 25 kes jî jin in. Di rapora han de navê wan kesên ku li benda birêveçûna cezayê îdamê ne, nehatiye nivîsandin.

Saziyên ku rapora han belav kirine, daxwaz ji gişt azadîxwazan, navendên sivîl û çalakên mafên mirovan li Îran û cîhanê kirine ku bona betalkirina biryara îdamê li Îranê zêdetir hewlê bidin.

Navê wan Rêxistinan bi awayê jêrîn e:

**Civata Parastina Girtiyên Siyasî**
**Rêxistina Parastina Mafê Mirovan Li Kurdistanê**
**Çalakên Îranî Ên Parêzerê Mafê Mirovan li Ewropa Û Amerîkaya Bakûr**
**Komîteya Xwendekarî A Parastina Zîndaniyên Siyasî**
**Komîteya Parastina Girtiyên Siyasî Li Azerbaycanê**
**Komîteya Nûçegihanên Mafên Mirovan**

# PIRSGIRÊKÊN MIROVAHIYÊ



ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com

Her heyber bi dijberê xwe û her wate jî bi dijwateya xwe tê zanîn û watedarkirin. Her çend ku

pexîlî wekî dexesî, hesûdî an çavnebarî bê dîtin an jî wekî zikreşiya kompleksa raserbûnê bête zanîn jî, bêşik mirov dikare wateya gellek hestên neçê û ramanên neyînî jî lê bar bike. Belê berevajî wê fedakarî, têborîna mirov a hemû berjewendiyên kesane ye. Her wiha fedakarî, têkoşîna mirov a li hemberî metirsî, xetereyî û zordariyên civakî ye. Ev yek bi xwe armanceke payeberz û pîroz e û gellek hest û bestên mirovî di xwe de dihewîne.

Bi kurtayî pexîlî, riknê rikdariya navbera mirovan û jêderka şer û kîn û aloziyan e. Belê fedakarî, destpêka bidestxistina tevê nirx û hêjahiyên mirovî û kilîda hemî rêz, rêzdarî û rûmetdariyan e. Fedakarî, di dilê mirov de hest û bestên mirovheziyê pêk tîne. Û her wiha gellek bizav û libatên nefsbiçûktiyê bi mirov re digihîne. Mirovên fedakar ne ji bo xwe ji bo gel û civakê dikevin nav liv û bizavên sûdewar û erênî. Û ew tucar bi pey mezinahî û navdariyê nakevin. Ne ew bi başî behsa xwe dikin û ne jî ji bo ku meriv bi başî behsa wan bike, fedekariyê dikin. Wekî ku “La Bruyer” jî dibêje: “Mirovên nefsbiçûk qet behsa xwe nakin”

Îro li ser rûyê erdê du feraset û nêzîktêdayinên dijber û lêkneker hene. Yek pexîlî, ya din jî fedakarî ye. Wekî ku li jor jî hate diyarkirin, hemû neyînî li ser binyata pexîliyê û erênî jî li ser a fedakariyê ava dibin. Jixwe, ewqa geremol û gengeşiyên ku li ser rûyê erdê rû didin hemû ji destê pexîlî çavbirçîtî, çavnebarî û ezperestiya mirov e. Belê pêşveçûn û şarezahiyên gerdûnî û xenîmeyên vê dinê hemû jî dîsa bi fedekariya mirov bi dest dikevin. Bi qasî ku li ser rûyê dinê mirovên pexîl û xêrnexwaz hene, ew qasî jî yên xêrxwaz û fedakar hene û dê hebin jî. Îro têkiliyên navbera mirovan jî li ser vî hîmî hatine rûnandin. Her wiha pêwendiyên navbera şer û aştiyê jî li ser vî riknî bilind dibin.

Ji do heta îro mirov di nav xwe de bûne du şeqan. Ên têr û yên birçî . Ên têr û bitir, di nava bezm û kêf û hingemeyê de digevizin û yên birçî jî di nav kambaxiya diljarî û xizaniyê de difetisin. Mirov dikare bibêje, di heman serdemê de mirovên ku heman gerdûnê parve dikin, hin ji wan di bihuştê û hin ji wan jî di dojehê de dijîn. Li ser heman rûzemînê û di heman serdemê de hem bihuşt û hem jî dojeh hatiye avakirin. Îcar gelo pêkan e ku di navbera kesên dojehî û bihuştî de yeksanî, aştî, rêz û hurmet pêk were. Ev yek rasterê dibe sedema dexesî, pexîlî û çavnebariyê. Her wiha ev yek dibe jêderk û bingeha şer û pevçûnên lêkneker û jênager ên navbera civak û mirovan jî.

Mirovên ku heman erd û erdnîgariyê parve dikin, hin ji wan ji sibê heta êvarî xwêdana xwe paqij dikin û dixebitin, belê li nan û pîvazê dihesilin. Heta gellek caran li nanê zik diheyirin. Hin jê jî, her çend ku eniya wan xwêdan nade û avê di nava xwe de naçelqînin, belê her devekî wan tiştekî dixwe û di kêfa belek de ne. Bi awayekî din mirov dikare bibêje, xwediyê kedê di nav xizan û birçîtiyê de dijîn, keslan û kedxurên dinê jî di nav bongî û bitiriyê de digevizin. Heta ku li quncikeke cîhanê mirovên têr û li quncika din jî yên birçî hebin, ne pêkan e ku aştî, azadî û mirovahî pêk were û mirov bi mirov şa bibe. Dîsa heta bêkarî, birçîtî, parsekî, hêjarî mişextî û penaberî ji ser rûyê erdê ranebe, ne gengaz e ku dexesî, hesûdî, rikdarî, çavnebarî û pexîliya nevbera mirovan ji holê rabe. Lewre her mirov hêjayî xîret, hurmet û şeref û rûmetê ye. Ji bo wê mafê her mirovê/î heye ku bi awayekî yeksan, li gora pêdiviyên xwe ji vê xwezayê fêde û sûdê wergire û li ser rûyê vê erdê wekî serbixwe û azad bijî. Dibe ku ev yek wekî nêzîktêdayineke utopîk bê dîtin, belê bi rastî jî heta ku feraseteke wisa derbasî jiyanê nebe, serê mirovahiyê ji karesat û belawatên dinê xelas nabe.

Jiyan û pirsgirêkên mirovahiyê dişibine ava çemekî serhildêr û mirovên qeraxa çem ên tirsonek û tirale ku yek ji yê din re nebêje “Heke hinek ji me ranebin xwe ji hinekan re nekin pira, dê emê heta dawiya temenê xwe li ber qeraxa vî çemî herin û bên. Tu kes nayê me derbasî aliyê din nake.”

Tu arîşe û kêşeyên dinê jixweber çareser nabin.

Jixwe ku mirov bîra vê yekê bibin, dê hemû pirsgirêkên mirovahiyê çareser bibin. Û dê “Gur û mî tev de biçêrin.”

Kaniya Helbestan

# Li Rojhilat



**Cegerxwîn**

Şev reş û tarî, bahoz û bandev
Nakevî dest me: ne razan ne rev
Hewrên rêzanî tarî û giran
Berfê bibarî, yan gulebaran ?
Em reşhewravin kevneperestî
Tênin bîra min dîlî, bindestî
Dar bikevî dest mirovên xwînxwar
Dîsa dimênin birçî û hejar
Karê me dibî veşartin û rev
Tavê nabênin bi rojê em tev
Tênin ber çavan dijûn û lêdan
Şemaq û qamçî, kawçûk û zindan
Pêlên zordestî wek lehî û çêm
Xwe berdin ser me xum-xum û lem-lem
Di ber xwe dibin bîr û serbestî
Paşve dişkênin nûjenperestî
Tên perçiqandin tev destûr û rist
Raserî me tên ev kevnepirist
Benda Azadî li xwe napirsî
Belkî ez şaşim, ji wan natirsî
Tarîx û abor, herdu di gel me
Eger bitirsin ji bo me şerme
Badîhewane ev tav û bahoz
Eger em rabin hemû dibin toz
Vane, şiyarbûn cotkar û karker
Dijmin têşênin bê ceng û bê şer
Çiqas bimênî ev cîhan bê deng
Bê şer, bê kuştin, be halan û ceng
Em her diçin pêş, dijmin diçin paş
Bê av digerin ev dolab û aş
Sermayeperest, tev top tavêjin
Nabênin îro çawan sergêjin ?!
Ew çi talan û çi ceng û pevçûn
Bila xweş bikin hemû cî û şûn
Hemû em mirov bibin wek bira
Cî nedin diza, rê nedin gura
Cîhan xweş bikin tev bax û bihişt
Ne şûr, ne xençer, ne derf û ne xişt
Keser nemênî wek min dilbirîn
Ev dinya xweşe, dinya Cigerxwîn

# Bajarê Cizîra Botan Bûka Mezopotamyayê Ye

Konê Reş- Qamişlo, 25.09.2008

Cizîra Botan bajarekî gellekî kevnar e, mirovaniyê mora xwe li gellek perestgeh, mizgeft, keleh, qesir, pir, sûr, burc, û gellek avaniyên wê yên cur bi cur xistiye. Gellek şaristanî têre derbas bûne û her şaristaniyekê bermayê xwe, şop û şûna xwe li bajarê Cizîrê hiştine. Bajarê Cizîra Botan ji kurdan re bajarekî pîroz e, ew jî mîna bajarê Qudsê( Orşelîm) ye. Ji ber ku hêjî ew bajarê Kurdî yê orjînal e; Kurdîtiya xwe parastiye, zimanê kurdî di kolan û çarşiyên wê de tê axaftin û yê bazarê ye.

Jixwe wek ku tê zanîn, piştî tofana Nûh Pêxember mirov li herêma Botan; bajarê Şernex û Cizîrê bi cih bûne. Piştre di cîhanê de belav bûne. Dibêjin dema keştiya Nûh pêxember li ser çiyayê Cûdî sekiniye, nav li çiyayê Cûdî hatiye kirin û gotine (Cî dî), ango keştiyê wî cihek ji xwe re dît. Di Qurana pîroz de jî hatiye: “***We estewet elel Cûdî***”, ango keştiya Nûh Pêxember li ser çiyayê Cûdî sekinîye. Jixwe kurd dibêjin; di heyamê tofana Nûh de, dema keştiya wî bi ser çiyayê Şingalê re derabs bûye, li kûpê çiya ketiye û konek têde vebûye. Mar xwe kiriye gulofîtek û ew kon girtiye, da ku av nekeve keştiya wê de û dibêjin ku kevokê bi nikilkê xwe şaxek ji dara zeytûnê, wek mizgînî ku nêzîkî bejayê dibin, ji çiyayê Cûdî ji Nûh pêxember re aniye û ji wê hingê ve kevok û şaxikê zeytûnê bûne sembola aşîtiyê. Hem jî dibêjin ku navê Nûh pêxember ji gotina (Nû) a kurdî hatiye, bi wateya nûbûnê. Ji ber ku dinya wê hingê ji nû ve hatiye avakirin. Dema ku Nûh û her heştê hevalên xwe, li ser çiyayê Cûdî ji keştiya xwe daketine, wana di quntara çiyayê Cûdî de gundek bi navê Heştêyan ava kirine. Ew gund ta roja îro jî di pala çiyayê Cûdî de ye. Xuyaye ku di pey gundê Heştêyan re, bajarê Şernexê hatiye avakirin û jêre gotine Şarê Nûh ango bajarê Nûh an şarê Nû. Bi dirêjiya demê û pirrbûna mirovan re xelk ji herêma Botan derketine û li dinyayê belav bûne û weha kurdmanc li cihê xwe, herêma Botan mane û ji wan re hatiye gotin ***Kurdmanc***, ango( Kurd Man li Cî).

Di baweriya min de bajarê Cizîra Botan ji kurdan re mîna bajarê Mekkê ye ji Ereban re. Zimanê wê jî ji kurdan re mîna zimanê Qureyşiyan e ji ereban re. Ji kevin de û ta roja îro zimanê kurdî tekane zimanê axaftina xelkên wê ye. Zimanê danûstandin û bazirganiya wê ye. Di roja îro de bajarê herî dawîn e di nav kurmancaxêvan de, ku bi tenê zimanê wê kurdî ye û zimanê kurdî parastiye û diparêze. Piştî ku serhildana Mîr Bedirxan di sala 1847’an de beravêtî bûye, mîr û malbata xwe di sirgûnê de dûrî welatê Botan jiyana xwe derbas kirine û bi taybetî piştî damezirandina Komara Tirkiyê di sala 1923’an de, şerê ziman, dîrok û hebûna kurdan bi tundî hatiye kirin. Ango ji 161 salî ve xelkên Cizîrê li ber xwe didin.

Ji 95 salî ve, dagirkeran bi sedema ku zimanê kurdî nemîne, bi rêk û pêk şerê zimanê kurdî kirine. Zimanê kurdî wek sembola paşverûtiyê û nezaniyê destnîşan dikin. Dagirkeran ne tenê planên bişavtina çand û ziman li ser kurdan meşandine, lê belê wan xwestiye ku kurdan di her warî de asîmîle bikin... Lê Botanî, di roja îro de şerm dikin ku bi hev re bi tirkî biaxifin. Xuya ye ku Mîrên Botan jî, digel serhildan, nakokiyên xwebixweyî û têkçûnan, hişmendiyeke kurdewarî di herêma Botan de çandine. Her weha di bin desthilatiya wan de çandek kurdewarî hatiye afirandin û zimanê kurdî wek zimanekî şaristaniya pêşketî di nav çerx û dewranên salan de hatiye bikaranîn. Wêjeyek bi zimanê kurdî hatiye nivîsandin û weha gellek zanyar û rewşenbîr ji nav civaka Botan derketine. Nav û dengê gellek ji wan di cîhanê de belav bûye. Armanca dagirkeran ne tenê bişavina çand û zimanê kurdî bû, belê wan xwestiye ku hişmendiya dîrokî jî, ya gelê Botan ji holê rakin... Li gor ku min dît û nas kir, dîroka mîrnîşîna Mîrekên Botan a ku di herêmeke berfireh de, bi navê Mezopotamiya ku dor hezar salî dom kiriye, qet destûr nedaye û nade dagirkeran ku planên xwe bi rehetî derbas bikin, her dem û gav bûne kelem û asteng li pêşiya projeyên wan. Ji ber ku xelkên Cizîrê, di demeke dirêj de, ji hêla ***mîrekên Azîzan*** ve, bi hezkirina ziman û welatê xwe hatine perwerdekirin. Lê sed heyf û mixabinî ku nezaniya me jî bûye alîkarî ji dagirkeran re, ku pêmayên me yên dîrokî li ser piyan nemînin...! Burca Belek û gellek şûnewarên dîrokî yên din wêran bûne. Ji bilî wan, gellek cihên dîrokî hene, ku şop û şûna wan nema xuya dikin. Dagirkeran jî gellek cihên dîrokî wêran kirine, hin jî di bin ava Dicle de mane. Gellek cih jî di bin erdê de nebedî ne, xebat û xepartin ji wan pêwîst e.



Tevî ku roja îro 84 mizgeft li bajarê Cizîra Botan hene û dewleta tirkî mehiya 84 Melayan dide, lê min ew bandora olperestiya îslamê a zêde lê nedît..

Erê! Bajarê Cizîra Botan; keleha berxwedana azadî û zimanê kurdî ye, navendek ji navendên olên dinyayê ye, landika şaristaniya mirovahiyê ye, Heca kurda û bûka Mezopotamya ye.

Taybet bo rojnameya AGIRÎ ye

## Çend Stêrên Geş Di Esmanê Helbesta Nû Ya Kurdî De

Pirtûka nû ya nivîskarê Kurd **Xelîl Duhokî** bi navê “çend stêrên geş di esmanê helbesta nû ya kurdî de” çap û belav bû. Pirtûka han ji weşanên Yekîtiya Nivîskarên Kurd Taya Duhokê ye û ji 325 rûpelan pêk tê.

Nivîskar di vê pirtûkê de nirxandina kar û wergera berhemên helbestvanan û herwiha danasîna helbestvanên Kurd bi giştî di hemû Kurdistanê de kiriye armanca xwe û bi vê çendê xebat û xizmetek berbiçav bi tore û edebiyata Kurdî kiriye. Hebek ji vê pirtûkê ji bo pirtûkxaneya Agirî re hatiye pêşkêşkirin.

Em tevî destxweşî û mandînebûnî û pîrozbahî ji birêz Xelîl Duhokî, herwiha hêviya berdewamî û serkevtinê di hemû kar û xebatên wî, bi taybet xizmet bi wêje û edebiyata Kurdî de jêre dixwazin.



Dengê Rojava



Bê navnîşan: Şîlan Hemo..

# Helbestvana Ku Bi Dilê Xwe Dibîne!

Besam Mistefa

**Ez napirsim ew aniha çi dike:**
**Tûrik li mil e**
**Êş li ser piştê bar in**

**Kolan bi kolan**
**Ew li xwe digere niha.**

"**Bê navnîşan**" yekemîn dîwana helbestan a helbestvana Kurd Şîlan Hemo* ye ku bi zimanê erebî derdikeve. "Bê navnîşan" di nav rûpelên xwe de gellek helbest û deqên ku bi berçavka hundirîn ya Şîlanê hatine wênegirtin, vedihewîne. Ev wêneyên ku hema hema û bê nav û bê nîşan çawa ku dilê wê jê re gotiye hatine girtin. Ew komek têkçûn û bîranîn û yadigarî û azwer in ku mîna kertên vexwendinê-bi bihna narinc û yasemînan xemilandî- helbestvan wan dişîne da ku xwendevan beşdariya wê bike di xemgîniya wê ya rojane de, da ku pêre rahêje hinek êş û xemên wê yên bê dawî pêre parve bike. Bi giştî, helbestên wê kurt in wekî çirûskan xwe li nav dîwarên hiş û bêdengiya me didin û hewil didin ku bêrîkirina wê ya şikestî û melûliya wê ya bihêz bigihînin me.

Di destpêka pirtûkê de ya bi sernavê" **Ev**

**helbestvan bejina xwe bilind dinivîse û li derî dixe"** helbestvanê bi nav û deng Îbrahîm Ûsiv dinivîse û dibêje:" Pirtûk ji çend deqên kurt pêk tê ku bi berçavka dil hatine kişandin, û Şîlanê ew ji nû ve forme kirine, heta jê hatiye bi kurtî hizra xwe komî serhev kiriye û bi gotinin kêm pêşkêşî me kiriye".

Şîlan helbestvana bêserûber ya çil û yek êşî, ya xemgîna kêfbexş, ya azwera serkeftiya têkçûyî, bi perên vê koma helbestên xwe re-eva bê nav û bê nîşan-avakirina kişwera xwe ya li ser qûmê berdewam dike. Riya dirêj daye ber xwe û her têde dikeve meş û tevgerê de. Carina dikeve, carina hêza wê namîne, carina tî û carina birçî dibe, lê her meşa xwe didomîne û ranaweste, tu qey dibêjî hêzeke nediyar yan jî cadûgeriyekê ew di nav pencên xwe de rapêçaye û her wê dehf dide...berbi pêş de.

Şîlan li ser xewnên xwe yên sade-weke dilê wê- dijî. Li hêlînên dilê xweyî piçûkî belawela digere, wek ku xewnên di nava wê de şerê hevûdu dikin û serê hevûdu dixwin û tiştê ji ber wan dimîne tenê alên împeratoriyet û dewletên kevinare ne.

Li ser evîneke ne wek ya em wê nas dikin, Şîlan dinivîse. Her kes li ser yara û yarê xwe digirî, tenê Şîlan-wek ku qedera wê eynî wisa be-li ser "Mem û Zîn" û " Ferhad û Şêrîn" û yên dinê ji lehengên efsane û dastanên kurdî evên ku bi çolan û biyabanan ketin û negihana ti navnîşanan û li vir û wira mirin bêyî ku bigihîjin hezkirî û yarikên xwe, lê belê çîrok û dastanên wan ji nifşekî gihane nifşekî dinê, û ji dilekî gihane dilekî dinê û ciyên xwe di her maleke kurdî ya dagirtî bi êş û xerîbî û koçbariyan de girtin, Şîlan li ser wan digirî û dinivîsîne.

Bi wan re, Şîlan biyaban bi biyaban li buhara dilê xweyî miçiqî digere, lê belê rastî tu avsaran nehatiye ku tîna dilê xwe bişkîne. Wê pirr bang kir, pirr qîriya û axivî heta ku dengê wê bê deng ma. Lê, axaftinê tiştek nekir, û barê westanê da ser milê wê, tu qey dibêjî ew hatiye afirandin da ku biweste û mîna xewnperesteke dawî xwe bi alên rengîn û tozgirtî veşêre! Temen û sal û roj û meh çûn lê bihar nehat, hema ku hat jî wê ne di dema xwe de, gêj û bêmad were:

**Bi şirşirîka bariyam**
**Payîza min şîn hat**
**Buhara min ne di dema xwe de hat**
**Şanoya xeman bidawî hat!**

Di quncikeka dilê wê–yê perçiqî- ciyek bi firehiya asîman ji êş û kulên gel û welatê wê re heye. Helebçe bê ku destûrê bixwaze derbasî mala helbesta wê dibe, dergeh hemû ji Helebçeyê re vekirî ne, dilê xwediya malê jî ne xerîba xem û bêzariyê ye: dilê şikestî û birîndar e. Helebçe xencereke tûj e di navtenga dîrok û mirovatiyê de, ya xak û mirov de. Şîlan a dilşewat weku dilkê dayikan li ser her kevirekî di Helebçeyê de digirî, li ser her darekê, li ser her zarokekê ku mir, xeniqî li ser sînga diya xwe, li ser her dayikeke xenqî li ser sînga mêrê xwe, li ser her mêrekî xeniqî li ser sînga kevir! Lê, piştî ku ew hêsrên xwe paqij dike, bang dike Helebçeya giyan:

**Here zaroka sedsala bîstan**
**Tar te distrênin û**
**Helbestvan te dibêjin.**

Şîlan qet naraze. Eger raze jî, dikê wê hişyar dimîne li ser riyên bi mij û dûman digere. Mîna narincekê, ew bi bihna xwe êvara xemgîn dadigire. Ewa li ser milê wê ne çenteya wê ye, lê mal û welatê wê ye. Ji xwe Şîlan mal û welat nîne wek ku carina hizr dike û gellek caran ji hizra xwe bawer dike...gellek nav-bi piranî mêyane-mîna çirisîna stêrkan di nav asîmanê helbestên wê de derbas dibin û nîşana bîranînekê, bajarekî, xewnekê bibîr tînin, lê di nav barîna van navan de, bê hemdî xwe ew navekî tenê jibîr dike, navê xwe jibîr dike, tenê navê xwe. Her çawa be jî, dilê wê mişt jiyane. Jiyana ku dişibê wê û kurdên wê û bajarên wê û gundên wê û heriya gundên wê û heriya xewnên wê. Çend bîranînên rengfirîn wekî rûyê wê yê rengfirîn, wekî bajarên wê û temenê wê yên rengfirîn xwe di gergerînoka mejiyê wê de hiştine, nemaze dema ew xwe dispêre biyabana temenê xwe ya bê serûbin, stêrkin ji evînek-eger rast be em wa bêjin!- evîneke ne xuyayî tevî hertişî diçirisin:

**Çû...**
**Du çixareyên sotayî**
**Li paş xwe hiştin û**
**Çû!**

Şîlanê bê ku hay ji xwe hebe riyên kaniyên ku dil av didin wenda kirin. Hîn ji xewna şîr venekirî, rastî tiştekî bi navê kîn û zikreşiyê tê. Ji demsalan, payîzê ji xwe re hildibjêre yan jî payîz wê hildibijêre. Bi Ullîs re dikeve nava şer û qirênê de. Sîzêf ji xwe re dost dibîne. Dîsa, gotinên wê aramiyê dixin dilê me de, wekî çîrokên dapîran di şevên zivistana yên dirêj de û dengê bahoz û bagerên li derve ji me dûr dixîne. Ew hewil dide bihna êvarê-û qehwe û strana bi me bide nasîn, lê ev hemû riya xwe wenda dikin weke xwediya xwe û mîna dûyekî dûr di asîmanekî dûr de dibine hilm, diçin. Tenê westan û bihna rojan û axaftina bê dawî digihîje me, lê Şîlan dimîne:

**Heta êvarê**
**Hîn jî perdên wê berdayî ne**
**Li pişt pencereya wê ya piçûk**
**Çivîk li ser darên sindiyanan**
**Dilorînin.**

***Şîlan Hemo:**

-Di sala 1967-an de li Qamişlo ji dayik bûye.

-Xwendina xwe ya seretayî û navendî û lîse li Qamişlo xilas kiriye.

-Înstîtûta amadekirina mamostayan li Qamişlo qedandiye.

-Di gellek malperên kurdî de dinivîse wekî: Efrîn, Semakurd-Tîrêj bi herdû zimanên kurdî û erebî.

-Di gellek kovarên kurdî li Sûriyê nivîsandiye wekî: Zanîn-Hîwar-Mewasim.

-Di kovara"Asoyên perwerdeyê" de gotarên der barê pirsgirêkên zarokan de dinivîse.

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat: AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

E - Mail:
agiri2003@hotmail.com
agiri2003@googlemail.com

## Rejîma Îranê Hevkariya Xelkê Lêmiştlêdayî Yê Makûyê Nake



Ajansa "irankhabar"ê da zanîn ku seba hevkarînekirina rejîma Komara Îslamî a Îranê tevî xelkê lehîlêdayî yê Makûyê di meha Tebaxa îsal de, çend rojan berî niha nêzîkî 5 hezar kes ji xelkê vî bajarî ku di encama lêmiştê de tûşî zirar û ziyaneke zaf hatibûn, li hember binkeya Fermandariya bajarê Makûyê kom bûn û nerazîbûna xwe di vê derbarê de diyar kirin.

Hêjayî gotinê ye ku di encama lêmişta îsal de, xelkê Makûyê tûşî zirar û ziyaneke zaf a aborî û canî hatine, lê berpirsên rejîmê heya niha tu hevkariyek bi xelkê lêmiştlêdayî re nekiriye.

## Îran Otombîla Jinane Çê Dike



Rojnameya "The Guardian" a Birîtaniyayê di hejmara roja sêşem 07.10.2008'an, raporek li dor biryara karxaneyeke otombîlê ya herî mezin a Îranê(Iran Khodro) belav kir ku amadekariyan ji bo çêkirina otombîleke jinane dike. Bi vê pilanê dixwazin hessasiyeta zayendî ku Îran rastî qonaxeke nû kiriye, kêm bikin. Ew cura otombîlê ku tê çêkirin tenê û taybet ji bo jinan dibe û li gor dilê wan û normên taybet ên jinan dê were çêkirin!

Fikra çêkirina vê otombîlê li ser bingeha cudahîdanên zayendî ên ku rayedarên Komara Îslamî piştgiriyê jê dikin, derketiye holê.

Rejîma Îslamî li Îranê dixwaze ku di her wareke civakê de jinan û mêran li hev cuda bike û di çend salên borî de dehan gelale û projeyên wisa hatine berbas û piştre birêve çûne.

## Enflasyona Îranê Di Rojhilata Navîn De Pileya Yekem Heye



Sindoqa Navneteweyî a Dirav di rapora xwe a herî nû de ragihand ku Îranê rêjeya herî bilind a awsan(enflasyon)a aborî di nav 14 welatên Rojhilata Navîn de heye.

Ajansa Nûçegihaniya Xwendekarên Îranê(ISNA) da zanîn ku qasê enflasyonê li Îranê 26 ji sedê hatiye îlankirin ku li gor vê yekê, di nava 183 welatên cîhanê de, pileya çarem a awsana aborî heye. Sindoqa Navneteweyî a Pere di rapora xwe de pêşdîtina vê yekê kiriye ku rêjeya enflasyona aborî a Îranê di sala 1387(2008-2009) de radeya herî bilind dê hebe û heta dawiya sala 1392(2012)'an, dê bigihîje rêjeya herî zaf ya xwe. Di nava welatên herêma Rojhilata Navîn de, Îran bi 26 ji sedê a awsana aborî yekem e, Yemen bi enflasyona kêmtirî 17,2 ji sedê di pileya duyem de ye û awsana herî kêm a vê navçeyê a Behreynê ye ku nirxa wê 4,5 ji sedê ye.

# Xelatên Nobelê Yên 2008'an




Her sal di vê demê de Xelatên Nobelê tên pêşkêşkirin. Xelatên Nobelê ên sala 2008'an hatin dayîn.

**Xelata Nobelê ya Aştiyê** îsal bi Serok Komarê berê yên Finlandayê **"Martti Ahtisaari"** hate dayîn. Ji bo vê xelatê îsal 197 berendam hebûn ku aqibet ber "Martti Ahtisaari" ket. Xelata Nobelê ya Aştiyê 1,4 milyon dolar dirav e.

**Xelata Nobelê ya Wêjeyê** a îsal jî dan nivîskarê Fransî **"Jean-Marie Gustave Le Clezio"**.

**Xelata Nobelê ya Kîmyayê** jî îsal ji 3 kesan re hate dan. Zanyarên Amerîkî **"Roger Tsien"**, **"Martin Chalfie"** û zanyarê Japonî **"Osamu Shimomura"** ew xelat wergirtin.

**Xelata Nobelê ya Fîzîkê** jî ji 3 kesan re hate dayîn. Zanyarên Japonî **"Makoto Kobayashi"** û **"Toshihide Kaskawa"** û zanyarê Amerîkî **"Yoichiro Nambu"** Xelatgirên Nobelê yên Fîzîkê bûn. Xelatgirên **Xelata Nobelê ya Tibê** jî diyar bûn. Ev xelate dan kesên ku Vîrûsa kansera rehima Jinan û "HIV"ê dîtibûn. Akademiya Swêdê Xelata Nobelê a Tibê a îsal dan her du zanyarên Fransî **"Franchoise Barre- Sinoussi"** û **"Luc Montagnier"** ku van her duyan vîrûsa nexweşiya "HIV"ê dîtine ku nesaxiyeke gellek xeter e. Digel van her duyan her wiha Xelata Nobelê ya Tibê a 2008'an dan zanyarê Almanî **"Harald Zur Hasusen"** ku Vîrûsa kansera rehima Jinan dîtiye.

## Balafirên Turkiyê Bi Giranî Herêma Kurdistanê Bombebaran Kirin



Rojên 12 û 13'ê Çiriya Pêşîn a 2008'an, balafirên şerî ên Arteşa Turkiyê hin gundên ser bi qezaya Amêdî ên girêdayî parêzgeha Duhokê bi giranî bombebaran kirin. Êrîş bo ser navçeyên Nihêl, Berwarî, Nêrwe, Rêkan û Avaşîn ên Amêdiyê hatiye kirin.

"PUK media"yê eşkere kir ku eva çend roj dibe balafirên şerî ên Arteşa Turk berdewam esmanê Kurdistanê dibezînin. Vê çavkaniyê da zanîn hin gund bi dijwarî hatine bombebarankirin.

Çavkaniya han eşkere kir ku tevî bombebarana balafiran, topxaneyên Arteşa Turk jî heman dever topbaran kirine. Heya niha tu agahiyên fermî li ser ziyanên canî û madî ên van êrîşan nehatine ragihandin.